*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd*
*di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siyasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (244) 21-12-2014 Buha (150) Tûmen*

## *Deqa gotara rêzdar Rostem Cehangîrî bi boneya 26'ê Sermawezê*

Dom: 2

## *Pêşmerge cangoriyê welat e*



**Di baregeha Deftera siyasî ya PDKÎ de, roja "Pêşmergê Kurdistanê" bilind hate nirxandin.**

**Dom R: 2**

Kurdistanmedia: Rêûresma roja "Pêşmergê Kurdistanê", li baregeha Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê li bajarê Koye bi rê ve çû.
Li gora rapora malpera Kurdistanmedia, bi beşdariya endamên rêberî, kadr û pêşmergeyên PDKÎ û Mesûd Tek sekreterê giştî yê Partiya

## *Şingal: Pêşmerge û balafirên şer bi hev re li DAÎŞ'ê didin*

Di nav bajarokê Şingalê de, şer û pevçûn didome û balafirên şer jî li derve û hundirê bajar de, li DAÎŞ'ê didin. Herwisa komek çekdarên DAÎŞ'ê yên ku dixwestin ji Mûsilê derbasî nav Şingalê bibin, rastî êrîşa balafiran hatin.

Pêşmergeyên Kurdistanê roja borî (20.12.2014)'an karîn ku herin nav bajarokê Şingalê û hinek taxên bajar rizgar bikin.

Çûna pêşmerge bo nav Şingalê gelê Kurd li her cihekî cîhanê kêfxweş kir, û vê serkevtina pêşmerge di medyayên cîhanî de dengvedaneke zaf hebû.



*"Bîreweriya min ya tal, di rastî de şerê Helepçe, û dîtina wî xelkê bê tawan bû...".*



*Birêz Mihemednezîf Qadirî*

8

*Gotinên pêşmergeyên PDKÎ li ser roja pîroz a Pêşmergê Kurdistanê*



3

*Şeva Yeldayê û ji dayîk bûna ronahiyê*



7

*Çima civak ew qas navên cur bi cur li keç û jinan dike*




9

*Eyşana Elî 18 sal berê di xerîbiyê de ji vê dinê bar kir!*



10

## Sergotar

### Girtiyên siyasî

Şehab Xalidî

Niha 28 girtiyên siyasî di girtîgeha bajarê Urmiyê de, dest bi girevê kirine, û daxwazkar in ku berpirsyarên girtîgehê wan ji girtiyên tometbar bi bazerganiya bi maddeyên hişber re cuda bikin, û herwisa di dema hatina malbatên wan de, wan azar nedin.

Bê guman ew helwêst û kiryara wan girtiyên siyasî cuda ji vê ku riya herî aram û bi dûr ji tundûtîjiyê ye ji bo baskirin ji kêşe û arîşeyên xwe, di heman demê de diselimîne ku ne tenê di girtîgehên rejîmê de girtiyên siyasî hene, belku ew girtî di bin zulm û zordarî û îşkenceyên bêrehmane de ne jî.

Her di vê derheqê de nûnerekî Meclîsa Şêvra Îslamî ya Îranê bi navê Abid Fetahî, radigehîne ku emê kêşeyên wan çareser bikin, û wan mafê vê heye ku boçûna xwe bi eşkereyî bas bikin, lê di bersiva vê pirsiyarê de ku gelo hekî eşkerekirina bîr û boçûnan di nizama we de azad e, çima ew kesane hatine girtin, dibêje ku: “Di nizama me de yasa heye, û li gorî yasayê kar tê kirin”.

Yanî kes nine ku nezane di Komara Îslamiya Îranê de çiqas mafên xelkê welat tê binpê kirin, û kes nikare baweriyê bi gotinên nedirust yên karbidetsên vê rejîmê bike, lewra girîng ew e ku xelkê Kurdistanê wan girtiyan bi tenê nehêlin, û bi her awayekî ku ji destên wan tê, piştevaniya xwe ji wan girtiyan nîşan bidin, ji ber ku ew hereketa wan cihê şanaziyê ye, û ew bi piştevaniya xelkê Kurdistanê û tewahiya azadîxwazan li her ciheke cîhanê wê bikarin karbidestên rejîmê neçar bi paşvekêşê bikin.

Lê eşkere ye ku hekî piştevanî ji vê hereketa medenî û aştîxwazane nehê kirin, rayedarên rejîmê wê dest bi serkut û îşkencekirina wan girtiyan bikin, ku di wan çend rojan de dilê celadên girtîgehê êşandine, lewra bi yekdengiya Kurd û Kurdistanê, wê girtîgeha Urmiyê bikare bibe kelha berxwedanê.

# KCK’ê serdana PDKÎ kir



**Kurdistanmedia: Heyeteke Koma Civaka Kurdistanê serdana Deftera Pêwendiyên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê li bajarê Hewlêrê kir, û tevî şandek ji PDKÎ hevdîtin li dar xist.**

Li gora rapora malpera Kurdistanmedia, roja Duşemî 15’ê Çileya Pêşîn a 2014’an, şandeke KCK bi serpereştiya Ferhan Amara berpirsa pêwendiyên Kurdistanî yên KCK’ê li Herêma Kurdistanê, serdana Deftera Pêwendiyên PDKÎ di Hewlêrê de kir, û ji aliyê şandekî PDKÎ bi serpereştiya rêzdar Teymûr Mistefayî endamê Polîtbîroya PDKÎ pêşwazî ji wan hat kirin.

Tewerên ku di hevdîtinê de hatibûne ber bas, bi vî awayî bûn: Gengeşekirina dawîn guherînên deverê û pîlanên ku li pişt girûpa terorîstî ya DAÎŞ’ê ve rûbirûyê gel Kurd û destkevtên neteweyî bûne.

Di wê pêwendiyê de serbarê bilind nirxandina rola hêzên pêşmerge û YPG di warê berevankirin ji xelkê û axa Kurdistanê û pûçkirina pîlanên neyaran, karî pêgeh û bandora bizava demokrasîxwaz a Kurdistanê di şerê li dijî terorîzmê de, bixe rojeva cîhanê, û bandoreke baş di asta hundir û navneteweyî de bo ber bi pêşveçûna doza Kurd çêbike.

Herwisa herdu alî hevdeng bûn ku hewcehiya girêdana Kongireya Neteweyî di hemû demekê de zêdetir xwe dibîne, û bo wê armancê hewce ye li derveyî wan berjewendiyên partî an parên Kurdistanê, û li ser bingeha hevpar û hevsengiya hemû parçên Kurdistanê, û li ser bingeha berjewendiya giştî a neteweyî ya hemû hêz û aliyan di asta berpirsayetiya xwe de, bi hevhizrî û hevkariya zêdetîr diakrin astengiyên li ser riya Kongireya Neteweyî wêde bidin, û rewşeke baş di warê siyasî de, ji bo Kongireya Neteweyî û ber bi pêşbirina bizava Kurdistanê lidar bixînin.

**Doma R: 1**

Sosyalîst a Bakûra Kurdistanê û mêhvanên din, li roja çarşemî 17’ê Çileya Pêşîn a 2014’an, rêûresma roja Pêşmergê Kurdistanê li baregeha Deftera Siyasî a PDKÎ de bi rê ve çû.

Rêûresm bi xwendina marşa neteweyî ya “Ey Reqîb”, û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdên Kurdistanê, dest pê kir.

Piştre bi navê desteya rêvebiriya rêûresmên PDKÎ ji aliyê pêşkeşkarên rêûresmê ve bixêrhatina amadebûyan hate kirin.

Piştre birêz Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî û berpirsê Komîsyona Siyasî - Nîzamî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, bi boneya roja Pêşmergeyên Kurdistanê peyama xwe pêşkeş kir.

Piştî pêşkeşkirina peyamê sirûdeke şoreşgerî ji aliyê koma mûzîkê ya PDKÎ ve hate pêşkekş kirin.
Hemû salê PDKÎ di roja 26’ê Sermawezê, roja Pêşmergeyên Kurdistanê de, xelata rêzgirtinê dide wan pêşmergên ku 20 salan di nav refa tekoşerên PDKÎ de xebat kirine.

Evsal ew xelata ji aliyê Mihemed Nezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ ve pêşkeşî şeş pêşmergeyên PDKÎ bi navên Nuredîn Sofîzade, Behmen Dêhqan, Hûsên Sitemdîde, Luqman Şêxanî, Hebîb Hesen Sifet û Hekîm Etmanî kir.

Peyama Yekîtiyên Jinan, Xwendekaran û Ciwanên Dekomra ên Kurdistana Îranê ji aliyê Celal Rewangerd ve hate pêşkeş kirin. Piştre stranek Lurî ji aliyê Mehmûd Xezayî pêşmergê PDKÎ ve hat xwandin.

Di dawiya rêûresmê de, Hîwa Mihemedî bi alîkariya koma mûzîkê ya PDKÎ stranek pêşkeş kir.

Herwisa li gorî rapora “Kurdistanmedia”yê, Komîteya Pişderê ya PDKÎ, Komîteya Bitwîn a teşkîlata eşkere ya PDKÎ, hejmerek ji girtiyê siyasî yên Kurd li Mehabadê û Encumena Penaberên Siyasî yên Îranê li Silêmaniyê, bi vê boneyê ve, peyamên xwe pêşkeş kirin.

Herwuha Arena Sine li hundirê Rojhilata Kurdistanê helbestek bo merasimê şandibû.

# *Birêz Rostem Cehangîrî:* *Pêşmerge di nav deshilata neteweyî ya Komara Kurdistanê de ji dayîk bû*

**Xûşk û birayên hêja!**

**Mêhvanên rêzdar û hevalên pêşmerge!**

26'ê Sermawezê roja Pêşmergê Kurdistanê, ji hemû aliyekî pîroz be. Di 26'ê Sermaweza sala 1324 (1945)'an de, binkeya xedr û dagîrkariya di Kurdistana azad de, bi destên kurên welat hate jinavbirin, û alaya Kurdistanê hate bilindkirin.

Vê roja mezin 2'ê Rêbendanê li pey xwe anî, û Komara Kurdistanê ava kir, û navê pêşmerge bo yekemîn car li ser şervanên Kurd hate danîn, û Kurdistan bû xwediyê hêzeke cangorî ya bidestvehînerê ewlehiya di Kurdistanê de. Lewra di sala 1984 (1363)'an de PDKÎ ew roj wekî roja Pêşmergeyê kurdistanê pejirand.

Pêşmerge baskê bihêz ê gelê Kurd, çeka rewayiya xebat û berxwedanê, birûska sotînerê dexlê dijminên azadiyê, û xortê xwedî helwest û xwedî şeref û keramet ê neteweya Kurd e. Pêşmergeyên Kurdistanê, ew xortên çavnetirs û bi bîr û bawer û hişyar ên Kurdistanê ne ku di pêxema bextewerî û asûdeyiya neteweya xwe de, û ji bo pêşerojeke geş ji bo nîştiman û xelk û xaka pîroz ya Kurdistanê de, sermayeya herî giranbuha ya jiyana xwe bi şerafet û sexawet û merdî ve dixin ser destên xwe, û pêşkêşî baregeha azadiya netewe û nîştiman dikin.
Keç û korên tejî ji îradeya azadîxwazane zinîcîra koletiyê ya dehsilatdarên ehrîmenî yên Cemaranê qebûl nakin, û bi bîr û hizra xwe ya azadîxwazane, û bi helwêst û bi kiryarên xwe yên şoreşgerî, bend bi bend û şûreya ehrîmenî diherifînin û wekî bahoza îrade û mirovdostiyê bi ser koşka talankeran de tînin xwarê, û di cihê tawan û stemê, dara pirr berhem ya azadiyê diçînin û li ser xaka pîroz ya Kurdistanê, pêşerojeke geş û bextewerane ji bo hemû mirovên akinciyê Kurdistanê bi bê cudahî ava dikin.

Pêşmergê Kurdistanê di nav deshilata nîştimanî û neteweyî û demokratîk a Komara Kurdistanê de ji dayîk bû, û bi dehan salî ye ku berbûye canê stem û çewsandinê ya ji aliyê tarîkbîran ve, û nav û dengê wî ji bo cîhanê bûye nav û dengekî nasyar.

Îro rojê, şeqam û kolan, û dukan û bazar û kargeh û zewî û zar û çiya û xwendibgeh û zanko û hemû binkeyeke îdarî, aborî, civakî, û çandî û... hwd, di Kurdistana Îranê de, dikare çepereke pîroz ya pêşmergatiyê be, ji ber ku nav û rêbaza pêşmergatiya Kurdistanê bi qasî bihust bi bihustên Kurdistanê û bi qasî dilê hemû keç û korên Kurdistanê geşe kiriye, û her takekî Kurdistanê di cihê jiyan û karê xwe de, dikare bi îradeyeke şoreşgerî û bi hizr û xwestekek azadîxwazane, dets bide helwesteke pêşmergane, û hemû panahiya Kurdistana nîştiman, ji dagîrkaran û kirêgirtiyên Cemaranê bike cehnem û agirbaran.



Birêz Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ

**Beşdarên rêzdar!**

Hêza pêşmergê Kurdistanê hem li dijî rejîma serberedayî ya paşatiyê şer kiriye, û hem jî eva çendîn sal e ku li dijî rejîma biyûm a Komara Îslamiya Îranê xebat û tekoşînê dike, û di hemberî êrîşa hovane ya rejîmê li dijî xelkê Kurdistanê berevaniyê ji man û hebûn û kerameta neteweyî û mirovî kiirye, û berevajiyê piropagendeyên rejîmê, hêza pêşmergê Kurdistanê cihê hêviya xelkê ye, û eva rejîm e ku roj bi rojê bê hitbar dibe.

Rewşa niha ya rejîmê
Rejîma Komara Îslamiya Îranê ku bi dirêjahiya çend dehikên derbazbûyî li ser serkut û binpêkariyên kerameta mirovî di Îranê de berdewam bûye, û bê rawestiyan mijûlî talankirina sermaye û samana vî welatî bûye, û li derve û di herêmê de jî dev ji têkdanê bernedaye û çavkaniya terorîzmê û palpiştê sereke yê girûpên terorîstî di herêmê de bûye.

Herçend ku deshilatdarên vê rejîmê berdewam bi tirs û be'ecandin û çavsoriyan û bi îdama xelkê Îranê û azadîxwazên neteweyên Îranê, xwastine ku dêm û rûçikê rejîmeke yekdest û heta hetayî ji xwe nîşan bidin, û bi rêxistina karwanê teror û kuştar û zîndanîkirin û îşkenceyê, xwastine ku tirs û wehşetê di nav dilê xelkê de çêbikin, û hemû kesî ji kiryar û helwêst bîrkirina azad dûr bikin, û wan neçar bi paşvekêşanê bikin, lê di qonaxên cuda cuda de, naweroka pûç ya rejîmê eşkere bûye, û hatiye selimandin ku berevajiyê piropagendeyên wan, ne tenê rejîm yekdest nine, û xwediyê biryareke yekalîker ji bo pirsên çarenûssaz nine, belkû di ew qasê dijberiyê de, bandên talanker yên rejîmê hewla jinavbirina hevûdu didin, û her yek ji wna hewlê didin ku beşeke zêdetir ji serwet û samana vî welatî talan bikin, û li ser vê deshilata biyûm û di pêxema dizî û gendeliya her çi zêdetir bibe şerê wan, û lewra di qonaxên çarenûssaz de, ew nikarin biryarê bidin û têde dimînin.

Dawî mînaka vê sergêjiyê di civîna van dawiyane ya gotûbêjên navikî digel girûpa pênc zêde yek de eşkere bû. Piştî derbasbûna salekê bi ser lihevkirina demkî û dana poanên zaf ji aliyê Komara Îslamiya Îranê ve, û teslîmbûna wan di hemberî rojava de, di dawî derfeta bo lihevkirinê de, ku heya roja 3'ê Sermawezê (24'ê Novamber) bû, bi çend sedema nekarîn ku li hev bikin.

Yekem: Rejîma Komara Îslamiya Îranê , di vê rewşa aloz ya herêmê de, ku destên wê bi xwe jî di alozkirina wê de heye, bi taybetî li derheq peydabûna diyardeya DAÎŞ'ê, dixwaze ku mifahê werbigre, û bi ragirtina karta gotûbêjên navkî, carê ji bo heyamekê bi karta aloz ya herêmê bilîze, da ku bi tirsandina rojava ji xirapiya warê ewlehî û asayişa Rojhilata Navîn, bikare poanên zêdetir ji rojava werbigre, lê ew karta zêdetir ji hemiyan rejîmê bi xwe di nav qofiya aloz ya herêmê de dibe xwarê, û dijberiya hindî zêdetir ya xelkê herêma Rojhilata Navîn bi xwe ve digre.

Ya duyemîn: Bandên cuda yên nav rejîmê, şer û pevçûnên di navbera wan de gihaye kopka xwe, û çendîn band û mafyayên mezin û çendîn hûrde band di nav wan de ne, û her yek ji wan di pirs û aloziyan de berjewendiya wan ya talankerane ya cuda heye, û bi taybetî di pirsa navikî de, hem bandên wisa hene ku bi tundî pêdagiriyê li ser alozkirina pirsê dike û hem jî bandên wisa jî hene ku di gemaroyan de bi milyardan dolarî qaçaxa tiştên qaçax hebûne, û niha jî hene û naxwazin ku wan qazancan ji dest bidin.

Di vê navberê de, rêberê rejîma wan, ku digotin axivtina yekem û dawiyê, her ew dike, niha bi xwe berjewendiya wî ya talankerane bi henek ji bandan re heye, û nikare niha biryarên yekalîker bide, û gelek alozî û kêşeyên biçûktir hebûne ku nekariye çareser bike, û tê de maye, û bi axivtina wî nekirine. Niha di pirsa çarenûssaz ya navikî de cureta biryardanê nine û bi kurtî û bi kurdî di nav qofiya destçêkiriyê xwe de maye, û dernakeve.

Lewra û bi wan sedeman rejîma Îslamiya Îranê di pirsa navikî de li pey kirîna demê digere, û bi xatircemî ve, dem bi zirara rejîmê diçe pêş.
Ji naliyekî din ve xebat ji bo azadî û rizgariya ji dest dîktatoran her berdewam e.

Meşên Kurdistana Rojhilat bi sedema êrîşên DAÎŞ'ê li ser Kurdistana Başûr û Kurdistana Rojava, ku rejîmê jêve bû ku dikare bi qazancê xwe mifahê jê werbigre. Lê gelê Kurd gellek hişyarane ew meşên xwe kirin dijî dijminên gelê Kurd bi her reng şêweyekê be. Diruşma "bijî Kurd, bijî Kurdistan, bimre dîktator" .

Li her bajarekî Kurdisanê diruşm didan ku "Vir herya Kobanê Kurdistan e", û "bijî azadî". Van diruşman rejîm xiste lerzê, lewra wan îzin neda ku gelê Kurd bi awayê serdemiyane di



pêxema daxwaziya azadî û serbestiya neteweyî de xwe nîşan bide.

Heya rejîmê di vê roja ku diyarî kiribû ku tê de xelk kincên kurdî li xwe bike, be'ecîbû. Îzin neda ku xelk heya kincên kurdî jî di wan ciyan de ku diyarî kiirbûn, li xwe bikin, û li dewra hevûdu kom bibin.

**Hevalên hêja!**

Eva nêzîkî çend hefeyan e ku girtiyên siyasî ên Kurd, di girtîgeha Urmiyê de, ku li dijî têkelkirina wan degel girtiyên din, dest bi girevê kirine. Girtiyên siyasî yên Kurd daxwazkarê cudakirina wan ji girtiyên din in, lê rejîm bi qestî daxwaziyên wan qebûl nekirine, û heya niha jî ji aliyê deshilatdarên bajarê Urmiyê û girtîgeha Urmiyê ve bersiva wan nehatiye dayîn, û ji qedera wan girtiyan nûçeyeke wisa di ber dest de nine.

Em wekî PDKÎ piştevaniyê ji vî karê şoreşgerî ê girtiyên siyasî dikin, û daxwazê ji kom û komeleyên mirovdost û navneteweyî û rêkxirawên parastina mafên mirovan dikin ku zextê bixin ser Komara Îslamiya Îranê, da ku bersiva wan girtiyên siyasî bidin, û wan ji mirinê rizgar bikin.

Lê rejîm bê xeber e ku pêşiya xwestekên xelkê nahê girtin, û rojekê dibe borkan û bi ser dar û nedarê rejîmê de wê biherike, û bi tewahî rejîmê wê ji nav bibe.

Şoreş û berxwedana Kurd di parên din ên Kurdistanê de berdewam e, û roj bi rojê nêzîkî daxwaziyên xwe dibin.
Di Kurdistana Bakur piştî çendîn sal xebata bê rawestiyan, niha jî asoyeke rohn ji bo her du aliyên hikumet û mafxwazan tê xuyakirin, ku bikarin ji riya diyalogê ve çareseriyekê ji bo pirsa Kurd di Tirkiyê de bibîne.

Diyaloga rasterast di navbera Qendîl û Îmralî û Enqerê, bi rê ve diçe. Ew pêvajo herçend ku bi astengiyan re wê berbirû bibe, lê em hêvîxwaz in ku herdu alî bikarin bi ser hemû astengiyan de zal bin, û riya diyalogê bigrin pêşiya xwe, û pirsa Kurd di wê para nîştiman de, ber bi asoyeke rast û dirust ve bibin pêş, û Kurd bi mafên xwe yên neteweyî şa bibe.

Di rojavaya Kurdistanê de, piştî heyameke zaf ji dûrbûna ji hevûdu, û heya dijberiya bi hevûdu re, niha asoyeke geş tê de, tê xuyakirin, û ji vê pêkvebûnê ku di bin çavdêriya rêzdar serokê Herêma Kurdistanê li Duhokê pêk hat, ji hev bilaviyê rizgar bûn.

Niha di rewşa şer û kêşeya di Sûriyê de, dibe pirsa Kurd wek neteweyek di vî welatî de berçav bê girtin, û Kurd bigihîje mafên xwe yên neteweyî.
Di başûra Kurdistanê de jî, piştî derbazkirina vê kirîza malî û şerê DAÎŞ'ê û nakokiya digel dewleta nawendî ya Îraqê, hêdî hêdî pirs çareser dibin, û hêza pêşmerge karî ku pêşiya êrîşa hemû aliyane ya DAÎŞ'ê bigre, û bi hatina hêzên navneteweyî balansa hêz di vê para welat de bi qazancê xwe biguherin, û roj bi rojê terorîstan ber bi paşve bibin. Digel dewleta nawendî jî karîn ku bigihîjin vê lihevkirina demkî, û bi ser wê kirîza malî de zal bin ku bi ser wan de hatibû sepandin.
Beşdarên hêja!
Xortên neteweya Kurd!
Di 26'ê Sermawezê de em hêvîdar in ku Kurd di welatê xwe de bi azadî û serbestiyê şa bibe, û bi hêviya vê ku di rijhilata Kurdistanê de em pêngav bi pêngav ber bi pêşve herin, û bo vê armancê jî dibe ku hemû aliyek bi hesta berpirsayetiya xwe ve rabe. Bi hêza hevgirtinê em dikarin ku hêz û enirjiya Kurdan bixin ser hev, û xebata gelê Kurd ya hemû aliyane ber bi pêş ve bibin.

PDKÎ ji bo vê pirsê amade ye ji bo alîkarî û yekdengî û yekrengiya navmala Kurd, û amadeyiyeke tewaw heye, ku wekî hemû carê ku me ragehandiye.

Em hêvîdar in ku navmala Kurd li rojhilat bi hemû reng û bîr û hizra xwe ve, yekgirtîtir be.
Di dawiyê de carek din pîrozbahiya roja pêşmergê Kurdistanê li hemû pêşmergeyên ntekoşer yê Kurdistan, û hemû evîndarên rêbaza berxwedana pêşmerge û malbatên pêşmergeyan, û şehîdan û girtiyên siyasî dikin.
Her bihusteke xaka Kurdistanê dikare ku çepereke pêşmergê Kurdistanê li dijî stemkaran be.

**Serkevtin ji bo gel û rêbaza azadîxwazane**
**Neman ji bo dijminan û bi taybetî dijminê sereke yê Kurd Komara Îslamiya Îranê.**
**26.09.1393**
**17.12.2014**

# Boçûnên hinek ji pêşmergeyên PDK Îranê bi boneya 26’ê Sermawezê roja Pêşmergê Kurdistanê

A: Arif Vêlzî

## Mihemedsalih Kerîmiyan - Hewramana Lihonê:



Pêşmerge navekî pîroz e ku ji bo parêzgarî ji man û hebûna neteweya xwe amade ye ku canê xwe gorî bike. Dijminên Kurd heya niha nekarîne ku pêşmerge bi çok de bînin û, destanrêsiyên pêşmerge îro rojê di cîhanê de deng vedaye, lewma ser û malê gelê me, îro pêşmerge ye.

Ew çekdarê şoreşvan e ku kariye serbilindane xwe û neteweya xwe biparêze. Lewra bi berçavgirtina van têdîtina ez jî bûm pêşmerge.

## Kamil Mihemedpenahî - Serdeşt:



Xelkê xwedî şerf ê Kurdistanê! Piştevanên hertimî yên pêşmergên xweragir di qada berbirûbûna digel rejîma axundî!

Hekî hûn dixwazin xortên we wekî caran di çepera şeref û Kurdatiyê de şoreşgêrane û serbilindane xebata xwe bidomînin, di roja 26’ê Sermawezê, wate roja pêşmergên Kurdistanê de, soza alîkarî û piştevaniya siyasî, madî û me’newiya xwe ducarî bikin, daku hêviyên li mêjîn yên hemû neteweya Kurd bi giştî û Kurdistana Rojhilat bi taybetî bêne cî.

## Kemal Feroxî - Mihabad:



Şoreşvanekî bi bîr û bawer û fîdakar, welatparêz û can li ser dest, bi qena’et, mafxwaz û pêgehiştî û têgehiştî, bi moral û berpirsyar li hemberî rêbaza şehîdan, emekdar bi ax û nîştiman, hilgirê çeka şeref û berxwedanê di pêxema rizgariya neteweya bindest û belengaz, rûxweş û sadiq heya bidestxistina hêvî û xewnên li mêjîn ên gelê xwe, hûn dizanin ew kes kî ye ku xwediyê van hemû ciwaniyan e?

Her ew kes e ku hemû salekê hizba civatên xelkên Kurdistanê, hizba rêberên şehîd Qazî, Qasimlo û Şerefkendî, wate PDKÎ rêz û hurmetê jê digire, û xelatê dike. Belê ew kes tenê û tenê pêşmerge ye.

## Gulê Îbrahîmî - Pîranşar:



Hekî caran hemû xelkê cîhan û herêmê serbarê hemû xebat û qorbanîdananê, bi awayê hewce gelê Kurd û pêşmerge nas nedikirin, lê bi xweşî ve niha cangorîtiya pêşmerge weha kiriye ku navê pêşmerge ketiye ser zimanê serkomar û serokwezîrên welatên mezin û biçûk ên cîhanê.

Lewra em hêvîdar in ku xelkê Kurdistanê alîkar û hevxemên xortên xwe bin û vê rastiyê bizanin ku eva ew in ku dikarin gelê Kurd li her parek Kurdistanê de ji zalim û dagîrkaran paqij bikin.

## Qadir Suhrabî naskirî bi Mameqale Tajanî - Bane:



Peyama min weke pêşmergeyekî dêrîn bo xelkê Kurdistanê eva ye ku, hemû aliyek vê rastiyê bizanin ku bi sedema hevkêşeyên siyasî û herêmî û navdewletî, tevgera Kurdistana Rojhilat di rewşeke dijwar de ye, lewra hewce ye ku hemû aliyek zêdetir ji caran tekoşînê bike bona yekrêzî û yekîtiya di navbera refên gelê me de, û bêhn fireh bin. Hewce ye hemû tex û qatên Kurdistana Rojhilat, alîkarên madî û me'newî û siyasî yên partiya xwe, wate PDKÎ bin.

## Ehmed Ferecî - Nodşe:



Ev pênaseya ku ez dikarim bo pêşmerge bikim ev e ku, nav û erkên pêşmerge ev qas pîroz in ku, bi bawériya min tu ziman û pênûsek nikare pesna wî bike.

Her bi vê sedemê bû ku bi şanazî ve zêdetir ji 30 sal ji temenê xwe min di pêxema xizmet bi gelê xwe yê mafxwarî û di nav bergê pêroz ê pêşmergatiyê de derbas kiriye. Pêşmerge ev xortê bi cerg e ku di pêxema bidestxistina maf û azadiyên gelê xwe de, dev ji hemû xizm û kesûkar û xweşî û serweteké berdaye û amade ye di vê rêyê de canê xwe jî fîda bike.

## Mistefa Pîranî - Hewşar:




Ez di berahiyê de pîrozbahiya roja 26'ê Sermawezê ji xelkê qehreman ê Kurdistanê dikim û, herweha hêvîdar im ku xelkê bi şeref yê Kurdistanê, di bereberê rojek bi vî awayî dîrokî û pîroz de, erkên xwe cîbicî bikin û bi qevdên Gulan, serdana malbatên serbilind ên pêşmerge û şehîd û girtiyên siyasî yên destê xedr û tarîperestiyê bikin, û serbarê pîrozbahiya roja pêşmerge, peymana emegdarî û piştevanî û domandina rêya wan nû bikin.

Hûn jî ey keç û xortên perwerdeyê xaka pîroz û pêşmergedost ê Kurdistanê, tevlî refên pêşmergeyan bin û şanaziya lixwekirina vê kincê pîroz, bikin xelata hertimî ji xwe re.

## Perwîz Meraxeyî - Urmiye:



Ez xwe ji vê yekê biçûktir dizanim ku peyamê ji bo xelkê Kurdistanê bişînim, lê dikarim bêjim ku daxwaza min ji xelkê Kurdistanê ev e ku, her weke caran piştevan û alîkarê pêşmerge bin û bi çavê rêz û hurmet ve ji xebat û berxwedana pêşmerge binêrin, û bi serdana malbatên şehîd û peşmergeyan biselimînin ku pêşmerge di qada xebatê de bi tenê nînin.

Hekî caran alîkariyên xelkê Kurdistanê bona pêşmerge, dana nan û vehevandina wan bû, lê niha dibe di warê pûçkirina pîlanên rejîmê û dana zaniyariyên dirust û hişyarkirina ciwanan û xwe parastin ji tevlika madeyên hişber û nasandina mewadfiroşan û kirêgirtiyên rejîmê be.

## Mihemed Kurdistaî - Pîranşar:



Pêşmerge gellek mezin e, lewra di demeke bi vî awayî kêm de nahê kirin ku bas ji hemû taybetmendiyê pêşmerge bê kirin, pêşmerge di nava xelkê de gellek mezin e û mezinahiya pêşmerge vedigere ser vê ku berevanî ji xak û neteweya xwe kiriye. Pêşmerge hertim sîngê xwe kiriye mertal di hemberî dagîrkerên Kurdistanê de, û herwisa bona bidestxistina mafên rewa ên gelê xwe, ji tu cangorîtiyekê xemsarî nekiriye.

## Mihemed Beharî naskirî bi Dilsoz - Seqiz:



Silav ji PDKÎ ku dahênerê navê pêşmerge û hêza pêşmerge û roja pêşmerge wate 26'ê Sermawezê ye.

Di dirêjahiya xebata 68 salan ya Kurdan di Kurdistana Rojhilatê de bi rêberiya PDKÎ, hertim pêşmerge bi vî mirovê xwebexş û cangorî hatiye gotin, ku tenê bîr ji rizgariya xak û welatê xwe dike. Lewma hertim hezkiriyê civatên xelkê Kurdistanê bûye. Tu hêzeke dagîrkar nikare pêşiya xebata pêşmerge bigire, lewma heya Kurdek bimîne, pêşmerge wê bimîne û bo rizgariya Kurdistanê xebatê dike.

## Dilawer Şerîfpûr - Urmiye:



Di despêkê de pîrozbahiya vê roja pîroz ji tewahiya xelkê Kurdistanê bi giştî û bi taybetî malbatên serbilind ên şehîdan, û girtiyên siyasî û pêşmergên nevest ên rêya serbestiyê dikim.

Peyama min bo xelkê Kurdistanê eva ye ku yekrêz û yekdeng û yekhelwêst bin di hemberî rejîma Komara îslamî de, û xelkê ji pîlan û siyasetên vê haydar bikin. Di dawiyê de daxwazkar im ku xelkê Kurdistanê her weke berê pişt û sitargeha pêşmergeyan bin.

## Mehmûd Xezayî - Nehawend:



Bi baweriya min pêşmerge wate ew kesê ku bêdengiyê wekî bêhêzî û bêçareyiyê dizane, û amade ye ku canê xwe bixîne tirsê, bona vê ku bîr û baweriya xwe zindî ragire.

Ew kesek e ku amade ye di qada xebat û berxwedanê de tekoşînê bike, û nexweşî û zehmetiyan qebûl bike, lê tucarî bindestî û zeluliyê qebûl nake. Pêşmerge wate qebûlnekirina hêlên sor ên dûr ji eql û dîktatoriyê, wate rewşenbîrek ku bi siloganên demokrasî ji bo azadî û serbilindiya neteweya xwe, çek û alaya xwe bilind ragirtiye û, mirina li ser pêyan baştir dizane ji serîtevandina di hemberî kevneperestiyê de.

# Nerîna Lîderan



Barzanî:

**“Em gelê Kurdistanê xatircem dikin ku serê dijminan wê bikeve ber piyên wan”.**



Bayik:

**“Amerîka dikare bibe aliyê sêyemîn di pêvajoyê de”.**



Usame Nucêfî:

**“Tu pêwendiya Suniyan bi DAÎŞ’ê ve nine”.**



Baydin:

**“Çavên cîhanê li pêşmerge ye”.**

# Şeva Yeldayê û jidayîkbûna ronahiyê



Hîwa Mîrzayî

Şeva Yelda wekî dirêjtirîn şeva salê, bi sedema diyardeyên xwezayî ye, ku tê de, livlivînên rojê di heyama salê de, di dawiya Payîzê de, digihije nizimtirîn xala asoyî ya başûra rojhelat, ku dibe sedema kurtbûna mideha rojê, û dirêjbûna mideha tarîtiyê. Lê bi destpêka zivistanê, roj carek din ber bi bakura rojhelat vedigere, ku encama wê jî, dirêjbûna rojê, û kêmbûna heyama tarîtiyê ye.

Bi awayekî din ji destpêka havînê heya destpêka zivistanê, bi şev û roj, roj hindik xwartir ji cihên xwe yê pêşîn ava dibe, û di dawiyê de, rojavabûn di destpêka zivistanê de digihîje asta herî xwarê ya başûr.

Yelda ji peyveke Siryanî hatiye wergirtin û manaya jidayîkbûnê dide.
Eva diyardeyek xwezayî ye, û ji aliyekî din cihê girîngîpêdana netewe û akinciyên Îranê, û xelkê hin welatên din ên herêma Rojhelata Navîn bûye, û ew jî vedigere bo çend sedeman:
Yek ji wan sedeman vedigere bo awayên jiyankirina xelkê, wek tê zanîn di serdemên kevn de beşa herî zaf ya xelkê ji rêya çandinî û heywandariyê jiyana xwe derbaz dikirin, û di destpêka zivistanê de bo xelkê bi manaya bêhnvedan û mifahwergirtin ji berhemên çandiniyê bûye, û lewra di vê şevê de bi rêvebirina rêûresmekê rêz ji mandîbûna xwe digirtin, bi dilxweşî û hilkirina agir diçûne pêşwaziya demsala sir û seqem û befrê.

Sedemek din ya girîngîdan bi vê şevê, vedigere bo curek hizirkirinê, ku tarîtî û şev wekî sembola ehrîmen bûye, û xelk bo berberekaniya di hemberî dirêjtirîn şeva salê de, li derdora hevûdu kom dibûn, û bi baskirina çîrok û xwarin û vexwarinê ev şeva han derbaz dikirin, û bi awayekî xwastine ku bi ser ehrîmenê de zal bin.

Şeva Yeldayê li kurdistanê û aliyê neteweya kurd ve, hertim cihê giringîpêdanê bûye, û ev şeva han, ji aliyê kurdan ve bi “şeva Çile” hatiye naskirin, û ew jî tevî neteweyên din bi nexşandina sifreyan û kombûn li derdora hevûdu, û bi baskirina çîrok û pêkenîn û xwandina helbestan ev şeva han bi xweşî derbaz kirine.

Lê serbarê vê ku şeva Yeldayê dîrokek e bo kurdan, ji dîtingehek din ve jî, cihê girîngîpêdanê ye, û ew jî eva ye ku şeva Yeldayê hevdem e tevî şeva jidayîkbûna pêxemberê aştiyê, û mamostayê dêmokrasiyê, û azadîxwazê Kurd şehîd Dr. Qasimlo.

Dr. Qasimlo li şeva Yelda di sala 1930 (1309)’an di malbateke xwedî milk di yek ji gundên bajarê Urmiyê de, bi navê gundê Qasimlo de ji dayîk bû, û her di serdema ciwaniya xwe de, jiyana xwe bo doza kurd û bidestveanîna mafên rewa ên Kurd terxan kir, û di sala 1971 (1350)’an bo mideha 18 salî wekî sekreterê giştî yê PDKÎ roleke berbiçav di vejandina xebata eşkere ya PDKÎ de hebû. Serdema sekreteriya Dr. Qasimlo yek ji geştirîn qonaxên xebata neteweyî demokratîk ya gelê kurd li rojhelata kurdistanê bûye.

Şeva Yelda ji serdema Xebata xwînawî û dijwar ya wê demê ya PDKÎ ve heya niha, di binkeyên PDKÎ de bi rêve diçe, û eva jî nîşaneya bawerbûn bi kulturekê ye ku PDKÎ bawerî pê heye, û ew jî kultura xweşî û pêkenîn, û rêzgirtin ji jiyan û hêvîdarbûn bi pêşerojê ye.

Kultura xweşî û pêkenînê kulturek e ku desthilatdarên komara Îslamî hertim dijbrê wê bûne, û hertim rêgir in ji birêveçûna vê boneyê ku tê de, xelk ji derdora hevûdu kom dibin, û bi dawet û xweşî û şadî dixwazin demê derbaz bikin.

Lewra em dibînin ku di mideha desthilatdariya komara Îslamî de, hem di ragehandin û hem jî di perwerde û



fêrkirinê de, bangeşe bo kultura şîn û girî û xemokiyê dikin, û ew yek bûye sedem ku Îran di serjimêriya sala 2013’an a “SDSN”’ê de, di nav 156 welatan de ku bo keyfxweştirîn û xemoktirîn welatên cîhanê hate encamdan, pileya 115’ê bi dest ve anî.

Herçend di vê lêkolînê de, zaf pêwerên din wekî aborî, tenahî û tiştên din berçav hatine girtin, lê bêşik ev kultura ku komara Îslamî bangeşeyê bo dike, bandorek zaf li ser rewşa hundirîn a Îraniyan heye.

Şeva Yelda bo Kurdan bîrhînerê kesayetî û dîroka xebata kesekî ye ku demokrasî û rêzgirtin ji mirov û bidestveanîna mafên xwe, kire binemaya xebata xwe, û heya dawîn dilopa xwîna xwe pêdagir bû li ser kurdbûn û mafên xwe.

Ev şev hêma û sembola zalbûna ronahiyê ye bi ser tarîtiyê, û jidayîkbûna Dr. Qasimlo wekî stêrkek geş ya neteweya kurd, hertim dibe rêz jê bê girtin, û di şeva Yeldayê de, nifş bi nifşê Kurdan hevdem tevî birêvebirina boneyên vê şevê, rêz ji rêbaza fîdakarî û xebata Dr. Qasimlo digirin.



# Birêz Mihemed Nezîf Qadirî "Bîreweriya min ya tal, di rastî de şerê Helepçe, û dîtina wî xelkê bê tawan bû ku ji aliyê rejîma Be's ve hatibûn şehîdkirin, ji ber ku ez di nav wan bûyeran de bûm".



H: Arif Vêlzî

Mihemednezîf Qadirî kurê Îbrahîm sala 1946 (1325)'an di Bayinganê û di malbateke naskirî ya melbenda Hewraman û Ciwanroyê ji dayîk bû.

Mihemednezîf Qadirî di temenmê 7 saliyê de çûye xwendingehê, û heya pola şeşê destpêkî di Bayinganê de xwandiye, û qonaxa nawendî û paşnawendî di xwendingeha Mihemedriza Şahê Pehlewî di bajarê Pawe de bi dawî aniye, û di tewahiya dema xwendinê de, di rêza dersxwanên herî baş û serkevtî de bûye.

Piştî xwandina qonaxa paşnawendî bi armanca domandina xwendinê di Amerîkayê de, pêwendiyê bi Civata FerhengîÎran û Amerîka li Kirmaşanê ve kiriye. Di havîna sala 1978'an de çûye bajarê Xuremşar û piştre çûye Ehwazê û di zankoya Cindî Şapûr ya Ehwazê li konkora şandina xwendekaran bo derve de beşdarî kiriye, û di encam de bo zankoya Meyamêy a Oklahoma ya Eyaleta Vêcîniya a Amerîkayê tê wergirtin. Ew rewşa hevdem bûye digel detspêka meşên li dijî rejîma paşatiyê a Mihemedriza Şah û destpêkirina xebata siyasî û eşkere ya PDKÎ.

Wî jî beşdarî di meşên nerazîbûnê de kiriye, û hêviya wî gihîştina gelê Kurd bi armancên xwe bi rêbertiya PDKÎ bûye, lewra di refa rêkxistinên PDKÎ de, di Hewraman û Ciwanro û Bayingan û Kirmaşanê de, mil bi milê xebatkarên wê deverê erkên xwe yên hizbayetiyê bi rê ve biriye. Di wê demê de bû ku axûndan siyaseta şer li dijî xelkê Kurdistan girtin pêşiya xwe, û piştî şerên Sine û Nexedê, û ....hwd, û di dawiyê de jî şerê Pawe dest pê kir, û Xomêynî biryara cîhadê li dijî xelkê Kurdistanê derkir, û ragehand ku PDKÎ hiloşayî ye, û biryara girtin û îdama endamên PDKÎ derkir. Di wê demê de navirî yek ji wan kesan bûye ku biryara girtinê jê re hatiye birîn, lewra di hember de biryara domandina xebatê hilbijartiye, û xizmet û rêbaza PDKÎ û gelê xwe girtiye pêşiya xwe, lewra nikare here Amerîkayê û heya niha jî bi serbilindî ve di çepera berxwedanê de ye.

Navbirî nasyariya xwe bi PDKÎ re weha tîne ziman: "Di rastî de her di temenê 15 saliyê de, bi sedema serdanên kesên naskirî yên Hewraman û Ciwanroyê bo mala me, û herweha axivtinên wan yên li ser Komara Kurdistanê û Qazîmihemed û şerê Ciwanro li dijî hêza paşatiyê, û piştre jî bandora şoreşa başûra kurdistanê, û beşdariya hinek ji xizmên me di şoreşê de, di gel hizr û bîra hizbatiyê nasyar bûm. Tiştek din jî ku ji bo min û gellek kesên din mînak bûn, stranên hunermendên naskirî yên Kurd wekî Hesen Zîrek û Tahir Tofîq bûn.

Her eva ku Hesen Zîrek di xetekê de digot: "Kurd nîm, Dîmokratim bê", û strana "Şîrîn Behare û gelî serbestî" a Tahir Tofîq. Di rastî de wan hunermendan bandora xwe li min kirin".

Navbirî herweha tevlîbûna xwe bi PDKÎ re weha tîne ziman: "Yekem car li bajarê Mehabadê de, ji riya endamekî nemir yê hizbî ve, bi navê Hemîd Kakîlî, xelkê Mehabadê bi şehîd Segurd Ebasî hatim nasandin, ku wê demê kak Ebas Weysî jî bi min re bû. Çend qebze çekên bernoyê û wesayiteke cîb a fermandehiyê, me wergirt. Piştî vegeriyana ji Mehabadê, min û kak Ebas Weysî rêkxirawa hizbê di bayinganê de, me ava kir, û binkeya PDKÎ di herêma Bayinganê bi awayekî fermî me vekir".

Birêz Mihemednezîf Qadirî roja herî xweş a jiyana xwe weha ji Agirî re anî ziman: "Ji min re bîreweriya herî xweş ew e ku di şerê sê heyvî de, hêza pêşmerge, hêzên rejîma Îranê xistin tengaviyê de, û Xomêynî neçar kirin ku peyama 26'ê Xezelwerê bide ji bo çareseriya pirsa Kurd.

Di wê demê de, ku carek din em çûne herêma Bayinganê, û çend dîlên şer jî li cem me bûn, xelkê pêşwazî ji me kir, û di xweşiyê de, me rondikên xweşiyê barandin".

Navbirî roja herî nexweş ya pêşmergatiya xwe jî weha tîne ziman: "Bîreweriya min ya tal, di rastî de şerê Helepçe, û dîtina wî xelkê bê tawan bû ku ji aliyê rejîma Be's ve hatibûn şehîdkirin, ji ber ku ez di nav wan bûyeran de bûm".

Li derheq jiyana hevpar jî navbirî weha ji Agirî re axivî: "Di 18.09.1368 (1989)'an de, min jiyana hevpar digel Şêwe Qareman Keyxosrew pêk anî, û di Qeslan, binkeya wê demê ya hêzên "Cinûba Kurdistanê", ku ez berpirsê melbenda duyem ya "cinûba Kurdistanê" bûm. Çawaniya vê xizmatiyê jî vedigere bo nasyariya malbata me di gel mala xizûrê min, û pesendkirina rabin û rûniştina civakî ya wan, û hesta wan ya kurdperwerî, û ogiriya wan bo PDKÎ.

Berhema jiyana me sê keç û kurek in. Jiyar keça mezin û nû bere ye, û niha sala şeşem ya kolêja pizişkî dixwîne, Tewar keça duyem sala çarem ya kolêja petrolê ye, Hejîr sala duyem ya zankoya Amerîkî ye, û Hêlîn sala sêyem ya nawendî ye".



Navbirî bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: "Ez şanaziyê bi vê rê û şopê dikim, ku min hilbijartiye, û li ser vê baweriyê me ku tu sermayeyek ji sermayeya me'newî binirxtir nine, û ji dîtingeha min ve xizmet bi gel û nîştiman sermayeya herî girîng e, lewra daxwazê ji ciwanan û bijardeyên Kurd dikim ku riya xizmet bi gel û nîştiman bigrin pêşiya xwe".

# Çima civak ew qas navên cur bi cur li keç û jinan dike



**Perî Raşîdiyan**




Di vê babeta kort de ez dixwazim ku îşare bi hindek gotin û kiryaran bikim ku di nav civaka me de rojane têne dîtin, lê bi tewahî wekî tundûtîjî têne hesibandin.

Civaka her neteweyekê hindek norm û urf û edetên tayebt bi xwe hene. Em her di destpêka jiyana xwe de, fêrî hindek gotin û kiryaran dibin, ku otomatîk di mêjiyê me de têne tomarkirin.

Em hemû dizanin ku di nav civaka me de hindek gotin û kiryar hene, ku di esla xwe de tundûtîjî di hemberî jinê de ne, lê em yan xwe serve nabin, yan jî em nizanin ku ew kiryar û gotin nebaş in.

Civak gellek navan li jin û keçan dike. Li hemû civakan de, her wisa ye, çi di civakên pêşkevtî de, yan jî di wan civakên paşkevtî de.

Jin û keçên kurdan navên cur bi cur hene. Ew nav li herçar parçeyên kurdistanê têne gotin. Bo nimûne: pito, pitê, afret...hwd.

Wekî kirayar jî, gellek tişt di nav civaka me de hene ku ew qas normal in ku çi sînoran nas nakin. Wê hizrê bikin, dema ku du mêr ligel hevûdu şer dikin, yekemîn tişta ku dibêjne hevûdu, bêrêzî ye bi xûşk, dayîk û hevjînên hevûdu. Yan dema ku mêr dibêjne hevûdu, ku here tu jin î, ez xwe nakim hevalê te, dema mêr dibêjin ezê simbêlên xwe bitiraşim. Em hemû şahîdê wan gotin û kiryaran bûne.

Gellek caran hekî bav yan dayîkek mehta keça xwe bike, dibêjê kurê min, helbet ewê jî ez bêjim ku gellek caran mebest ew nine ku keçan bi wan gotinan bişkênin. Belkû berevajî mebest ew e ku mehta keçan bikin. Ji ber ku kur statuyek zêdetir û bilindtir ji keçê di nav civakê de heye. Bav wê gotinê bi kar tîne.

Helbet ez vê yekê jî bêjim ku ew rexne hemû mêrên Kurd di nav civaka me de nagirin, bi xweşî ve hene hinek mêr û kurên ciwan, ku xwe ji wan urf û edetan diparêzin.

Di civaka Norwêjê de her çiqas ku welatiyek pir pêşkevtî û modern e, û mafê wekheviyê di hemû warî de, hekî %100 jî nehê parastin, lê ji %90 pitir tê parastin, lê dîsan jî hinek peyv hene, ku jinên Norwêjî pê nexweş in ku bibihîzin. Bo nimûne: Vennen min (lawo), skjaering (pîrek), jenta min (hevala min).

Ew gotin û kiryarane ku mirov di hemû civakan de dibîne, bandora nigatîv û nexweş didanin ser hindurê keç û jinan, û wê baweriye di mêjiye wan de ava dike, ku tu mirovekî ze'îf û netewaw î. Kesayetiya jinan tê şikandin, û nebaweriyek pirr bihêz li cem wan çê dibe. Ji aliyekî din ve, mêr xwe xwediyê eqlê tewaw dibîne, û wî mafî dide xwe ku kontirola mejiyê jinê bi dest bîne.

Ez li ser vê bawerê me ku di civaka me de, cuda ji şoreşa rizgarbûn ji dest zordariya dagîrkeran, me Kurdan şoreşên din jî, di pêşiya xwe de hene.
Diyare ku guherîna kultur û urfên paşkevtî pirosesek pirr dûr û dirêj e. Lê hekî em bixwazin, em dikarin guherînkariyê di hinek waran de, li gotin û kiryarên xwe de çêbikin.



# Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri̇̂**

Mirov tenê gava ku hez dike, xerabiyê nake.

**Anatole France**

Ger mirovan xerabî nas nekiribûna, wê çiqasî bextiyar bûna.

**Andre Gide**

Xerabiya ku ez bi hin kesên din nekim, hinên din dikarin bi min bikin.

**Alfred de Musset**

Mirov xerabiyan bi xwe diafirîne.

**Rousseau**

Bûyerên xerab ji sedemên xerab dertên.

**Aristophanes**

Zora xerabiyê bi xerabiyê nebe, bi qenciyê bibe.

**Incîl**

Mirov bi hêsanî dikeve nava xerabiyan, lê bi zehmetî jê derdikeve.

**Mme de Maintenon**

Tirsa ku ji xerabiyê dertê, mirov hê bêtir dajo ser xerabiyê.

**Assopos**



# Rojîn li ser Şingal û Kobanê distrê

**Destpêka sala bê hunermenda kurd Rojîn elbomekê nû belav dike ku di nav de stranek taybetî li ser Şingal û Kobanê jî heye.**

Rojîn ji Rûdawê re ragihand: “Elboma min ya nû bi navê “Ji nû ve” ye, û ji 17 stranan pêk tê. Piraniya wan stranan ji awaz û gotinên min in.”

Hunermenda kurd Rojîn wiha domand: “Bi taybetî strana Kobanê ku bi zimanê kurdî û îngilîzî hatiye amadekirin, ji awaz û gotinên min in.”

Rojîn da zanîn ku, 2 stran ji elboma wê ya nû bi şêwezarê Soranî ne, û yek li ser Roboskî ye.

# Eyşana Elî 18 sal berê di xerîbiyê de ji vê dinê bar kir!

**18 sal berê û roja 18’ê Kanûna 1996’an, hunermenda kurd Eyşe Şan wefat kir. Eyşana Elî li Kurdistanê hat dine, li xerîbiyê ji vê dinê bar kir.**

Eyşana Elî sala 1938’an li bajarê Amedê hat dinê. Ji ber ku bavê wê dengbêje bû, di temenê biçûk de bi saz û mûzîkê re bû heval.

Eyşe Şanê di temenê 9 saliyê de bavê xwe ji dest da, lê ji ber ku malbat û mirovên wê bi tundî li dijî wê yekê bûn ku Eyşe Şan stranan bêje, neçar ma ji Amedê here Dîlokê.

Li Dîlokê, ji ber ku kurdî qedexe bû, du salan bi tirkî di radyoyê de stran got, paşê sala 1963’an çû Stenbolê.

Li Stenbolê strana bi navê “Ez Xezal im” dibêje, û navdar dibe. Lê navdariya wê, serê wê dixe tengasiyê, û neçar dimîne berê xwe bide Almanyayê, lê piştî demekê dîsa vedigere Stenbolê.

Li Stenbolê sê zarokên wê dibin, lê ji ber ku bi kurdî stranan dibêje rastî zilma dewleta tirk tê, zarokên wê jî dest jê berdidin lewma neçar dimîne sala 1979’an berê xwe dide Bexdayê.

Piştî demek dirêj dîsa vedigere Tirkiyeyê. Herî dawî roja 18’ê Kanûna 1996’an li bajarê Îzmîrê ji ber nexweşiyê wefat dike. Her çiqas wesiyet kiribû termê wê li Amedê veşêrin, lê ew wesiyeta wê jî nehatiye cîh.



# Zimanê Kurdî




Unîteya 3. Xwendingeh û Jîngeha Min



Beşa 8. Dema xwendinê

## Bajar û gund

Li bajaran sînema heye.
Li gundan sînema nîne.

Li bajaran bazargehên mezin hene.
Li gundan bazargehên mezin nînin.

Li gundan zevî û rez hene.
Li bajaran zevî û rez nînin.

Li gundan gelek ajel hene.
Li bajaran gelek ajel nînin.



Beşa 9. Dema nivîsînê

**Valahiyên jêrîn dagirin**

| | |
|---|---|
| Li bajaran .................... heye. | Li gundan ....................... hene. |
| Li gundan .................... nîne. | Li bajaran ......................nînin. |
| Li bajaran .................... hene. | Li gundan .......................hene. |
| Li gundan.................... nînin. | Li bajaran .......................nînin. |

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Koneka tarî, tijî têda durr û mirarî.
- Şikeft yek derî, tê de hene 32 kevrên spî.
- Şkeftek reş, tije mihên beş.

2- Hevrist bi kevrî ve rist.
- Ban guşt e, bagurdan asin e. (* ser û mekîna sertiraşînê)
- Tistek xweşik heye Xwedê ew daye, zana û roniye, heft deriye, kî nezene bê mejî ye!!

3- Bê avdan, bê kolan, bê zibil û bê xodan şîn dibit.
- Hindî bibrî kata ji xwe didet.
- Hevrist bi kevrî ve rist.

4- Postê pisîkê, liser sivîkê.
- Du rêsiyên badayi, li berpal girêdayi.
- Di ser te ra, di bin te ra, kirope di babê te ra.
* kirope: Katên êksalî yên darê ne.

4- Cotekî Marê reş, jorda xwe berdan Geliyê xweş.
- Du rêz giya, li pişt çiya.

5- Malîkî mino, tu bi nîkilî ve.
- Girek di pêş te da, du qul têda.
- Kanîka qinê qinê, mîr û hakim dest didinê.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

◆ Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (244)


## *Çend dîmenek ji rêûresma roja 26'ê Sermawezê, roja Pêşmergê Kurdistanê*













